Êdi ev demokrasi û laiki ĵî îroj fitneyê heri mezîn, belavbûyi, kûr û dijware di nava welatê me de. Ew kesên ku x́we davêjin bex́tê demokrasiyê minaka wan kesan weki minaka fîl û korane.

Mix́abîn ev bela û fitne ya demokrasiyê û laikî yê bî destê dewletê di nava gel de belav dibe û kûr dibe. Her kesek û komek wek tarifa kora ku fil tarif dikirin ew ĵî bî wê ûsûlê demokrasiyê tarif dikin. Bi rasti tarif û danasina demokrasiyê heta niha hê keseki bêkêmasi nikaribuye bike. Ĵî ber ku hinek kes, doza heq û mafên insanan ê ku Allah *azze we celle* bîx́wluqandina wan re daye wan dikin em lê dimeyizênin bitenê ĵî boyi vê mîĵare x́elg terka aqida tewhidê dikin. Bix́apên dewletê dix́apin û dî nava kemînên wi de bi ber helakê vê dibezîn. Ev dewlet bû ku va not sale bi her awayê zordestiyê x́west ku x́elqê x́we geh bi daran geh bi bombeyan têx́e rêzê. Niha ev dewleta tağut ĵî dizane ku tenê bi dar û bombeyan wê ne gihê armanca x́we dest bî hile û pileyên di kirin. Fikr û ramanên kûfrê li ser me da barandin. Ew tağutê reş û tari çû tağuteki gewrane derkete holê!

Ĵî te re got “heq û maf, x́weserî û azadî!” pêre tê

ĵî x́were kire abd û kole. Hûkmê "La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah" betal kir, hîn putên mîri û zîndî ĵî te re bî x́wedati da qebul kirin. ĵî ber ku ev dewlet li ser vê aqidê hatiye sazikirin û vê aqide yê bi temamê hêzên x́we û sazûmaniyen x́we belav dike weki min berî vega ĵî ĵî te re got ev dewlet, Tağut e. Kesên bi zanin, yekser an neyekser pîştgiriya vê tağutê bike ew ĵî nefereki tağuta ye. Her bi çi niyetê bibeĵi ev taybetiyên min heĵmarti lî ser keseki, komeki an ĵî dewleteki hebe ew ĵî Tağut e. Ê ku iteat û giredayiya x́we ĵî wan re bî awayên cûrbicûr nişan didin Allah *azze we celle* wan kesa teqez afû nake çimki ew mirov bi vê tevgeriya x́we ketîne şirkê. Şirk ĵî gûneheki afukirina wê tun e û ceza yê wê ĵî doj a bêdawiye –neûzubillah- Her wiha ger bi yekcar tu van tağuta red biki, inkar biki!

Yanê divê pêşani û lahzeyek ĵî lahzeyeki zûtir x́we ĵî şirkê dûr biki, şirkê terk biki. Lazime paqiji û zelâliya x́we ĵî gunehên şirkê bi vê karê dest pê biki. Pêşî acizî û nefreta ĵî batıl re û piştre muhabbet û dilsoziyeki pîr qewi ĵî Rabb ê aleme re...

Dî encam ê de ev hate fêmkirin ku çawa hinek

insan gotina “La ilahe” ĵî bîr kirin û bitenê “illallah” ĵî x́were kirin wird û tespih bivê awayê helak bûn, hinek insan ĵî bî şev û roj zikra “La ilahe” dibêĵin le ĵî ber ku “illallah” ĵî bîr dikin bila ew ĵî li hêviya helakê biminin. Lewre aqida tewhidê yekpareye, nayê perçekîrin.

Erê bîrayêmin... Ew peyva hanê peyveki wusaye fêmkirin û amel kirina bî dilsozî qedandina temamê kûl û derdên dînyê ye. Çimki ev peyv bê şek û bêguman x́wediyê x́we ĵî gehr û kederên dinyê û ĵî tîrs û ezabên cehennemê ku belayekî herî mezine wê (biiznillah) x́elas û azad bike inş...

Sekin ĵî şeytan re tun e. Dibe ku dî vê lahzêde wesweseyeki têx́e dilê te û wusa bêje: “Tenê bi kelime/peyveki ĵî wi cehennem ê ku belayeki pîr mezine wê insan çawa x́elas bibe?” Ezê bersivê bi zarê Rasulullah (ass.) bidim ku ew herî rast û herî ewleyi yê insana ye. Wiha diferme: “Allah *azze we celle* roja qiyametê mîroveki ĵî ûmmeta min li hafa herkesî bikişine hisabê. Ĵî amelên wi yê ku di aleyhê wi de ne notuneh dosye vedibin. Her dosyeyek heta devera ku çavê te bibine mezin û girane. Piştre jê tê pirsin: “ĵî van dosye yê ku

tu dibini tişteki red biki heye? Muhafızên Min ê amelan, melek ên katîbîn get nehaki li te kirine?" Ew kes wiha bersiv dide "Na, ya Rabb ê min!" Pêrseki dî jê tê kirin "Erê lî cem Me ameleki te yê meqbûl heye û iroj lî te get neheqi newe kirin." Kaẋizeki ku li ser wi kelimeya şehadetê nivisiye tê derẋistin. Allah *azze we celle* jê rê diferme: "De iroj mizana ẋwe tu biẋwe bike."

Ew mirov dibêĵe: "Ya Rabbî! Viya tenê yek perçeyeki kaẋizê... Lê ew dosyeyê gûnehên ẋwe ji dibinim... Gelo encam we çawa çêbe..." Allah *azze we celle* ĵê re wusa diferme: "İroj wê li te qet nehaqî newe kirin..."

Rasulullah (ass.) bî berdewamî got: "Dosye yên wi têẋin şîkevikeki û ew kaẋizê ku lî ser "La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah" nivisandi têẋin şikevikê mizanê de. Şikevika ku dosye yên wi tê de bilind dibe. Lê ew şikevika ku kaẋiza li ser şehadeteyn nivisiye bêtir gîran dikişine. Li hember navê Allah *azze we celle* tîştekidi gîran nakîşine."

Gûnehên te tevde li aliyeki û gotin a te yê tevli inkar û red kirina tağuta li aliyê di were danin

bêguman wê kelimeya şehadetê herî girantir bikişine, û bî lutf û kerema Allah *azze we celle* wê tu daẋilê cennetê bibi.

Lê belê ez diẋwazim di vê ẋalê de ayeteki herî giring binîm bîra te. Em bi hev re lî ser vê ayetê bistẋeberek tefekkûr bikin.

Rabb ê me dî sûreya Nisa ayeta 116'de wiha diferme: "Bêguman Allah, şîrk aĵotîna Jê re teqez nabeẋşine. Lê belê ji vê yekê pêde kesê ku Allah bîẋwaze lî gûnehên wi dibore. Ew kesê ku jî Allah re şîrk diajon bî rastî ew bîşaşiyeke dûr rêşaşe."

Lî vê derê ev ẋal bî teybeti bala me dikişine. Ku Allah *azze we celle* bi teqdir û daẋwaziya ẋwe hemû gunehan dikare bibeẋşine, bitenê cûrma herî mezîn û gîran yanê guneha şirkê get û get nabeẋşine.

Erê birayêmin. Çawa ku tuji sehdiki Rabb ê me pişti imanê, gotina "La ilahe illallah" ê bi dîlsozî û pêkanîna vacibatên wi gunehên mûmina di lahzê de dibeẋşine. Lê ew kesê ku Jê re şirk baĵo her çî amelê bi sûd û bi kêr hati bikeji ẋelasiya wi jî ḡezeb û ezaba Allah *azze we celle* tun e. Allah *azze*

*we celle* çawa dî beẍşandinê de bi merhamete, ger jê re şirk were aĵotin lî hemberî vê asêbûnêji bî edaleta ẍwe re şedidu'l îqab e.

Tu min fêmdiki ne wusa? Pişti ku te iman anî û pêde; te her çî guneh kiribin Allah *azze we celle* ji boyi beẍşandina wana hêvi î mizginî dide te. Lê belê, tenê bitenê ĵî ḡeyni gunehê şirkê!

Belê, min pirsa te sehkir. Tu dibêji gelo tu tiştek nin e ku bibe kefaret ji guneha şirkê re û gemmara vê cûrma mezin û giran ji holê rake. Bersiv: Ew tişt ev e ku tu bibêji “La ilahe illallah” û aqide ya ẍwe yê têwhidê bî dîlbawerî eşkere biki.

Weẍtê ku min wusa got di be ku tu ji “Wey mala te ava bibe. Min digot qey wê tu dûayeki zahfi dirêj hinê min biki. Ger mijar ev hevok be ez ĵîẍwe vê hevokê dizanîm” bibêĵi û bî vê awayê min heskir ku tu bi vê aram buyi.

Ka tu bîbêje. Ev peyva ku di oẍira wi de cennet hatiye wa'dkirin û di encamê de ji seyra cemalullah wê hebi get wusa hêsan dibe? Em di vê miĵarê de mînakek ĵî ĵîyana ẍwe bidin. Kê ditiye ku zêr û dûrr bî bihaya dar û êzinga hatiye dayîn û si-

tendin!

Ĵî boyi malê bê misl û biha hema bitenê gotina hevokek bes têrî dike? Kê dikare vê dozdariye bide pêş.

Tu ĵî dibêĵi Na, ne wusa? Bihaya vê malê teqez ne erzane. Allah *azze we celle* ĵî wi kesê ku vê hevokê bi zimanê x́we dibêĵê çi dix́waze gelo? Pêwistên gotina vê hevokê çi ne? Ew pêx́emberê me ku ĵî boyi vê hevokê (La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah) bist û sê sal şev û roĵ, çêle û havin, têr û birçi, di şergehê de û dî aşitiyê de bê sekin û be bêhndan heta dawiya jiyana x́we herî daîm x́ebat kîr. (ass.) Emê ĵî ĵî boyi çareseriya pirsgirêkên x́we seri bidin sûnnet û siyera wi.

Heta em tekoşin û mûcadela Rasulullah (ass.) di ox́îra vê hevokê de kiriye hin nebin û nasnekin emê nezanibin ku bîha û bedela vê hevokê ku jime dix́waze çiye û çawaye! Lewre ew Rasulullah e (ass.) herî daim ji mere “ûswetu’n hasene” ye, elhamdulillah.

Heta ku İblis û hevalên wi yên li hember aqida tewhidê bî korbaweriyeki hefnikî tekoşinê dikin

em wana nasnekin emê nêzanibin ku ev hevok ĵî me çi diẋwaze, biha û bedela wi çiye.

Di nava keviran de biha û rûmeta almas çibe dî nava insanan de ji biha û rûmeta. Muhammed (ass.) ewe. Bi rasti ev teşbiha ku min daĵî pîr hêsan maye. Çimki ew, ji temamê aleman re ji boyi bibe rahmet û dilovanî hatiye şandin. Lê ew ji (ass.) beşere. Çima weki me beşere? Ĵî bo ku ji te re bibe minak yanê "ûswetun hasene". Ger ew weki me ne beşer mesela, em bêĵin ĵi melaiketan melekek bibuya ew çaẋ tu yê çî bikira? An ĵî ger heyinîyeki ji ḡeyni insan bibûya wê tu çawan bigihiştiya wi? Ev ĵi dibe wesileya hamdê bê hed bi Allah ê alemin ku Nebi (ass.) yê ẋwe ĵî yekî weki me şandî ĵî me re.

De heydê kerem bike em lî ĵiyana Rasulullah (ass.) mêze bikin. Rasulullah (ass.) çîl sali bu. Çîl sal ji umrê wi li paşmayîbu. Pêşeroĵa wi de bist û sê sal taqriben umrê wi mayibu. Qehr û tengasî hê piştî vê demê jê re bu mêvan. Lewre tekoşin û mûcadeleya tewhidê he ji nû da dest pê dikir. Belê, yek dikare bibêĵe çîl salê Rasulullah (ass.) di nav şirkê de boriye? Beguman, tu carî

kes nikare tişteki wusa bine ser ziman. Rasulullah (ass.) x́wedi baweriyeki tewhidî bu. Nex́asim ewî nêzanibu ku vê baweriyê bi çi awayi bine ser ziman û vê mudellel bike, yanê li ser bingeha delilân sazî bike. Qur'ana pirozji ji vê hale wi û ew tengasiya wi behs dike. We demê Rasulullah lî ser tewhidê bu lê gelê Mekkeyê dî nava şîrkê de digevizin. Hamd ĵi wi İlahê re be ku di nava ewqas şirk û neqenciyê de aqida tewhidê bi Rasul ê x́we da zanin û vejandîn.

Di nava wê gele de hinek kesên di ĵî hebûn ku ehlê fitretê bûn, hanif bûn. Wan kesan ĵi carinan ĵî x́were digotin "Hêy x́aliq ê vê kainatê! Ez dizanim tu heye. Ger min bîzaniba ibadet ĵi te re çawan tê kirin yek lahzeyeki tax́sir nedikir û minê bi wi şeklê ibadet bikirana." Tevli ku gelê wê dewrê bi jimarên x́we zahf û qelebalix́bûn û Rasulullah (ass.) di nava vê qelebalix́ê de bitenê bu ĵi disa tu cara bî qas ê misqaleki ne ketibu gunehên şirkê. Ne pêşi pêx́emberiyê û ne ji pîştra tişteki wusa get nebû! Lê ew tewhid û imana wi yê beri pêx́emberiyê bitenê jê re mayibu. Bi vê awayê "ew şahidiya ku nekaribu bine ser ziman" x́esar neda-

ye tu kesan. Çimki beriya pêx́emberiyê ne delilên wiye ku spartekê zanîneki zelal û ne ji hêzeki wi yê ku spartekê quwweteki ne lerizandi hebu. Di nava wan çil salan de yek keseki ku neyarti li wi kiribe tun e ye. Lewra ew hezkiriyê gelê x́webu, bîewleyî bu û x́wedî merhamet bu!

Rasulullah (ass.) kengê vê şahidiya tewhidê anî ser ziman û got "La ilahe illallah pê de neyartiya qawmê wi û temamê ereban wê bi çi awayê bihata fêmkirin û izah kirin? Ew gawmê wi yê ku wi binavê "Muhammedul Emin" binav kiribun piştre ew bûn mukezzîbên Rasulullah û ji wi re dest bî neyartiyê kirin. Belê ew tişt çi bu ku wan kesan kîr neyarê "Muhammedul Emin"? Ez ji te re bibêĵim ku ew tişt, mifteya cennetê ye ku mifteya cennetêji "La ilahe illallah" e. Belê, tu ji heyîri mayî ne wusa? Tu ĵi di bêĵi "ev çi iş e gelo?". Belki wê tu yê wiha ji bibêji "Wiya mijareki pir x́eribe. Wê tu yê banga cennetê li insana biki û lihemberi wi ĵi te re neyarti were kirin!"

Erê birayêmîn... Rasulullah (ass.) bang dikir digot: "Bêĵîn La ilahe illallah û tevdex́elas bibin û bikevin cennetê". İnsanên li hemberî wi ji lingê

x́we didan erdê û digotin “Na, x́êr! Em vê dawa te qebul nakin, belê em dix́wazin biçin cehenneme!”

Rasulullah (ass.) ji wanrederiyên cennetê nişandida lê wana cehennemê liserx́we vedikirin. Rasulullah (ass.) wana gazî rîzgariyê dikir lê ew insan ji bo bibin êsirê cehennemê lî ber x́we didan û wan kesên li dorax́we ji bi x́we re dikişkişandin cehennemê ve!

Pêx́ember ê me di nav qewmê x́we de rojên zahfi giran derbaskir. Lê belê ewi qenc dizanibu ku cehennem ji van zorîyan herî zor û dijwartire. Ĵi ber vê yekê ewi get guhê x́we ne dida wan işkenceyên ku lê dihatin kirin. Wan muşrikên neyarên islamê lê meyizandin ku bi işkenceya û bi zordestiya nekarin pêşiya vê daweta tewhidê bigirin dest bi hîle û pîlên di kirin. Hileyeki wan ji ev bu ku dix́westin rêyeki pevkirinê derêx́in holê. Kemîn û x́efikên muşrikên wê dewrê çawa zêde bûn kemin û x́efikên çêliyê wan ê irojî ĵi bê seri û bê bini ye. Ev gelê ku em di nava wan de dijin miýabîn ketinê daf û feq a van muşrikên modern. Evĵi nêzbuna şeytan ya ku ji milê rastevê nêz dibe ye.

Bala x́we bidê, birayêmin! Alîyê ku şeytan nêzi insan bibê yê heri x́etere/tehluke alî yê rastê ye. Çima? Dema ku ji alî yê rastêve nêzdibe amel û aqideya pûç û betal di nav libasên heqqê de tekdim û nişan dike. Mirov di nava batılê de noq dibê le ew lî ba x́we dibêje “ez tabî û hamî yê heqqê me!” çimki şeytan, batıl wekî heq, heq ĵî dî sureta batıl de nişan dîde.

Careki bifikre. Miroveki ku kansêr lê ketibi û haya wi ji vê nex́weşiya wiyê giran tune be, çukas tişteki dilêşiye ne wusa? Mirovek ji li ser rêşaşiyê û jiyanêki di nava kufrêde ku bî her pêgaveki rojbiroj dembidem x́we nêzi cehennemê dike, digelvê yeke x́we ji cennetîya dihesibine û bi hinek gumreşîya mijûlayi ya x́we dike, çukas tişteki x́erab e.

Hela roja qiyametê dema ku li hêviya cennetê mayibi û piştre bibe êzingê cehennemê çi tişteki erjeng e. Allah *azze we celle* em û te me tevde biparêze. (Allahumme amin)

Herweha ez ĵi te dix́wazim tişten ku ezê ji te re bibêĵim bi baldarî li min guhdar bibi.

Erê... Mûşriken Mekkeyê lî ber deriyê Rasulullah (ass.) în, ji bo pêşniyariya pevkirinê. Pêşniyariya x́we bieşkereti û bîzelâli x́istin holê. Pêşniyariyeki wusa kirin ku miroveki jirêzê nekare bî hêsani bibeje Na. Ew muşrik wusa dibêjin: “Hê Muhammed! De were em navbêra x́we çêkîn. Hewgas neyarti bila bes be û x́wuyna rijandi bila bisekine. Di nava qewmê me de wekî dema bori aşitî û ewleyî bibe hakim. Kin û adaweta bira ĵi bira re bila biqede. Sedema hatina me yê cem te ev e ku, tu iro ĵî me her çî bix́wazi em ê bidin te. Em ji bo vê yekê li hev civiyan û hatin ber deriyê te. Ger tu x́wediti û serwerî yê dix́wazi werê em te bikin mezinê Mekkeyê, da ku hûr û gîr ê me bî temami ĵi te re sertewandibin û iteata te bikin. Ger dax́waza te mal û milk e, em mal û milkên wusa bidin te ku tu bibi herî dewlemendê di nava me de.

Ger kûl û derdê te jin ên Mekke yê ê x́weşik bîn ĵi me re bibêĵe, da ku em di nava vê baĵara Mekke yê de ĵînê herî x́weşik û zayend kê be wê bi te re bizewicinin. Ne x́êr, kûl û derdê te ne evbin, ger nex́weşiyek be ji me re bibêĵe da ku em çukas

hekim û tabîbên li ser rûyê erdê hebîn wan ji te re binîn jibo tu weri serẋwe û şifa bibinî. Lê belê em ji te lava dikin tu vê tovê bêarami û dûbendî yê tune bike, biqedine! Em û te di navbêra ẋwe de peymaneki deynin. Salek tu ji ẋwedayê me re îbadetê bike Salek ji em ĵi Rabbê te re ibadetê bikin. Hema dibe ku dî ẋwedayê me de ẋêreki hebî wê tu yê sûd/feyde jê bigiri. Ger di ẋwedayê te de ẋêr hebî emêji je sûd/feyde bigirin. Lê em disa careki di ji te lava dikin bila ev diĵminahî biqede!"

Rasulullah (ass.) bî sukûnet û metanet li wan guhdarî kir. Piştre ji wan re got: "Ẋ́we wusa neperitinîn. Ne hewceyi hewqas tiştane. Tiştê ku ez ji we diẋwazim gotina yek kelimeyeke, bibêĵin û ẋelasbibin!"

Mezinên muşrikê Mekke yê pişti vi gotina Rasulullah (ass.) pîr şaş bibun. Lihember pêşniyariyê wan Muhammed (ass.) ĵi wan gotina yek kelimeyekî diẋwest. Ji Rasulullah (ass.) re gotin: "Hema ne kelimeyek ger diẋwazi em hezar kelime bibêĵin. Bes tu ji vê doza ẋwe bibore!" Rasulullah (ass.) weẋta ku ji wan re got "bibêjin, La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah û ẋelas

bibin" ew muşrikên ku ji bo peşniyariya lêkhatinê hati bun ber deriyê Rasulullah (ass.) çawa vê kelime yê sehkirin weki ku cîn ji hesin dûr dibe jiwê derê bi bez û rev dûr bûn. Bi kin û adaweta ẍwe yê dijwar dûr bibûn. Piştî vê hatin û bi rev dûrbûna wan çend carên di ĵi hatin cem Rasulullah (ass.). Pêşniyariyen ẍwe li pey hev dianin ser ziman. Cara dawiyê Rasulullah (ass.) vê bersivê da wan: "Ger hûn rojê têẍin destê min ê rastê û hêyv ê ji têẍin destê min ê çepê ez tu carî ji vê da'wa ẍwe naborim!"

Piştî vê hediseyê ev ayetên piroz nazil bun û bi vê ẍitaba ilahî pêşniyariyê wan ê lêkhatinê hûr û hela bu, ket binê erdê.

*"Bîbêje: Hêy geli kafiran! Ew (put û senem) ên ku hûn ibadetê wan dikin, ez ibadetê wan nakim..."* [1]

Belê birayêmin. Çawa ku tu ji dibini bûyer/hedise zahf bieşkereti û bizelali li holê ye. Ez diẍwazim di vê beş ê de behsa wan kesên dî rêye ki şaşdene û di nava sistema şirkê de cih girtine dîserdeji ku dibêjin "em vê yeke ji bo İslamê di-

1. 109/Kafîrûn, 2-3

kin" bikim. Ezê di navbêra tevgera wan û bersiva Rasulullah (ass.) ku ji muşrika re dabu qiyaseki bikim. Iroroj gelek mijulayi di nav insanande digerin. Ev gotin muheqqek hatiye ber guhê te ji. Wiha tê gotîn: "Ma em bihêlin bila meydan ji wan re bimine?" "Ez neẋwiynîm, emneẋwiynin tu neẋwiyne, belê wê ji me kê bibe deẋtor, mamoste û mîhendis?" Em zarukên ẋwe bihêlin destê çepgîr û kemalista qence an ji behêlin destê wan kesen rûbînur û nimêjkeran qence?

"Em çawa bikin, em becbûrin dinava ẋeraba de qencê ẋeraba bineqinîn."

"Ger iroroj daẋwaza me hakimiyeta İslamê be em mecburîn pêşi idareya welat biẋin dest. Jiẋwe ku idareya welat kete dest hertîşt wê hêsan bibe. Wê gavê emê qanunên bi gori emrû nehyê Allah *azze we celle* bikaribin çêbikin."

"De tu ji hewka serẋwede neçe bîrazî/ẋwarzi tevgera wiha ne başe. Ka iro li vê welatê ki têkili nimêja te dibe? Lê meyzê derîyen mizgeftan heta paşîyê vekirine. Pênc weẋt banga şerif Ji ser me kêm nabe. Şiḡulkerên daire yên dewletê ji ji boyî nimêja İn ê bi desturîn. Dî wan rojên iyd û cejnên

Remezan û Qurbanê tatil e. Her weha hûn ji zêdetir neẋwazîn, ev serẋweçûne!

“Hema wê bibêjin ew şirke û ev şirke... Başe, lê emê aboriya ẋwe bi çi bikin û çawa bikin? Ger ji we re mayibi hertişt şirk e.”

“Erê, hûn dibêjin dewlet Tağut e. Lê fersend bikeve destê we ji kêranina dewletê qet li paş naminin. Belê, madem ev dewlet tağute, ji neẋweşẋanê wi û ji posteẋanê wi û ĵî ẋizmetên şaredariyên wi istifade nekin.”

Birayêminê hêja. Ev û weki vana belki bî hezaran gotin dinava insanan de bigotegoti berdewam dike. Bizanibe ev gotegotên wana ji telbisatên şeytan pê de ne tiştekidine.

Ev gotinên hanê, ne ji imaneki bi gori Qur’anê bes ji imaneki bi ditina ji bav û kalan û ji din ê ki ku bi pivika mentiqê hatiye peydakirin derdikevin û belav dibin. Ew imana ku bî pevşêwritiya Qur’an û sunnetê derketibi meydanê ji van gotegotan dûr û zelâle. Lewre gotêgotên wusa pûç u beredayî ji devê yek musulmaneki ku Qur’an û sunnetê baş bizanibe qet dernakeve. Ez vê yekêji

binim berçavê te, ev gotegotên hanê carinan sirf ji boyî zîhnên mirovan bikin weki hewdelê tên belav kirin. Hin carinan ji bi niyete ki genc ev gotegotên pûçi bîḡeleti tinin serziman.

Lê bila baş were zanin ku her bi çi niyetê ev gotegot werin gotin ev hevok dibin sedema ḡezeba Allah *azze we celle*! Bila ev heqiqet ji qet newe ĵî bîr kirin ku, bî niyeta x́erab ameleki bix́eyr fasid dibe lê bi hûsn-û niyetê ameleki x́erab navegere ameleki salih. Allah *azze we celle* me bitemamî ji wan kesên ku di niyeta x́we de x́alîsîn u di amelên x́we de ji salihin binivise inşaallah.

Binhêre birayêmin! Allah *azze we celle* wiha diferme: "Gelî yên ku iman anine! İteata Allah, iteata Rasulullah û serokên ji we ne bikin. Her kijan mijarîde hûn bi hevketin ger hûn birasti bi Allah û bi roja ax́iretê bawerîn wê (mijara pevketinê) pêşkêşi Allah û Rasul ê wi bikin. Ev a ha (ji we re) çêtir e û encam a wi ji heri x́weşiktir e." [1]

Ev ayet ji me re diferme ku, dema ku hûn bî pîrsgirêkeki re lîqabûn rasterast wi bibin Allah û Rasul ê wi, pêşkeşi Qur'anê bikin.

1. 4/Nisa, 59

Û tevli vî wê pirsgirêkê x́we bibin cem serokên x́weyên ku ew tabîye Qur'an û sunnetêne.

Niha em ê jiyana x́we bidin ber çavê x́we. Em dibêjin "em musulmanîn" û dozdari ya imanê dikin, ka cihê vê ayetê di jiyana me de heye gelo? Ew pîrsgirêkên ku di heyata me de dertên pêşiya me ji boyi çareseriyê wana em bi gori ve ayetê tevgerdibin? "Gelo ev Qur'ana piroz di der heqê van pirsgirêke min de çî diferme, çareseriyek ji min re wê hebi?" An ji li hember van pirsgirêkê me rojeki em serdanê didin sûnneta Rasulullah (ass.). Ka, em dibêjin "Ya Rasulullah! Ji boyi vê derdê x́we ez hatim da ku tu reçeteya şifayê bidimin". Nex́we me terka sitendina çareseriyên x́we ji çavkani û memba a asli kiriye û piştre ji berê x́we daye hin deriyên şîkesti û zengorati!

Tu ji baş dizani ku çawa nex́weşinê bedena insan hebin weki wi nex́wesinên qelbê ji zahfin. Ji bo şifayê bibini tu diçi cem tabib û dex́toran. Ji boyi ku bibe wesile ya şifayê tabib reçeteyeki dinivise û dide te. Tu ji wê reçeteyê digiri û dîbezi eczax́aneyekî.

Dermankar wan dermanên ku li ser reçeteya

te nîvisiye dide te û amîlandina wan dermana ji te re tarif dike. Tarifa amilandina dermana li ser wanaji dinivisine. Tu ji van dermanê x́we di wex́tê wi de û bi piv ê ku nişani te daye vex́wi. Bi vê awayê ji inşaallah wê tu bigihiji sihheta x́we.

Belê... De ji kerema x́we re dikari ji min re bibêji ji boyi bigihîji sıhheta x́we tu çima bitenê bix́wendina reçeteya x́we bes naki? An ji wê reçeteyê li situyê x́we naaliqêni? Herweha tê fêmkirin ku neheqiyeki pîr mezin li Qur'ana piroz tê kirin, ne wusa ye? Ez sehdikim ku tu dibêji "Erê, erê bira... belki te kêm ji gotibi lê te qet zêde nekir. Aynî weke te gotiye..."

Ew reçeteyê tabibekî nivisiye ku ew ji insane, kesê nex́weş heta wan dermanên li ser reçeteyê nivisandine ne sitêne û ne amilêne herkesek dizane ku ew kesê nex́weş baş nabe/sax́ nabe. Ê başe ev insanên ku vê yekê dizanin çima ew Qur'ana ne ji miriya re, ji zindî ya re nazil buye bitene wê bi erebiya wi bix́wuynin û wê li hêviya derman û x́elasiyê bibin? Viya ji ne zulmekî ku li Qur'anê hatiye kirin e?

Bizanibe; herûdaim wê ku şifayê bide

neẋweşinên me yên qelbî û bedeni binavê ẋwe yê “Şafî” Rabbê me ye. Reçete ya ku ji me re daye nivisandin û şandiye Qur’ana piroze ku ruh û dilan têr û qewi dike. Ew dermankarê ku dermanên di nava vê reçeteyê de nivisiye ji me re amilandina wi nişan bide û hin bike ji Rasulullah (ass.) e. Tevli ku Çavkaniyeki wusa bê misil û bê buha di destê me de belê em çawan û çima ji vê menbaa şifayê dûr ketin? Çima gelo?

Lewre ji me re wîha dihat gotin. “Hûn ji vê kitêbê qet nekarîn fêmbikin. Bitenê ew mele yên giregir û bişaşik ji vê kitêbê bikaribin fêmbikin. Hûn kinê û fehmkirina vê kitêbê lî ku ma?” Jitere ĵi wiha gotin ne wusa? Tê bira te, hê dema zarokiyate te ji vê kitêbê tirsandîn! Em biçuk bîn, zarok bîn me nikaribu destê ẋwe bidin Qur’ana piroz. Ji me re digotin “Dest ne dê neẋwe wê ẋwedê te di nava agir de bişewitine!”

Em mezin bûn ji me re gotin “Lawê min, qiza min, hûn nîzanîn, hûn fêmnakin”. Heta ku vê Qur’ana piroz kirin hevokê nifîra “Qur’an li te biẋe!” Na, bîrayêmin, na! Qur’an lêdan, lî kesekî naẋe. Hela ew kesên ku bî dileki vekîri û bi dilsozî

werin aliyêwi Qur'an ji wan re dibe nûr, dibe hêz, dibe hêval, dibe rêzan û yare ki x́weşewist. Carinan ji li mirov dix́e. Lê ev lêx́istina wi ne ji bo kuştinê an jibo şeht kirinê ye, bes ji bo wi kesê vegerine vejiyandîn ê bi ĵîyaneki nipînû! Ev ji qet êş û elem nade insan. Bilakis êş û elemên insana dihedinîne. Ger ev Qur'ana piroz ne kitêbeki eşkere bibuna Allah *azze we celle* di gelek ayetan de wiha ferman dikir? Mêzeke, minakekî ji Qur'anê bidim te ku Allah *azze we celle* bî kî ja taybetiya Qur'anê qasem dike: *"Ha, mim. Qesem bibe bi vê kitêba ronak ku me ew dî şeveki piroz de nazil kiriye. Bêguman em bi wê (insanan) hişyar dikin û ditirsinin."*

Allah *azze we celle* ev kitêba hanê ĵî me re vikivekiri şandiye. Kesên ku dibêĵin "hûn fêhmnakin, em fêhmnakin" ne rast mijul dibin. Ew kesên ku wiha mijul dibin vir û derewan ji x́were kirine wird û tesbihat!

Vaye tu ji dibini birayêmin. Qur'ana piroz eşkere û zelâle. Bi tu awayi ne girtî û ne veşarti ye. Lê belê tu ji dizanî her firax́ek bî gori gencen a x́we yanê bi qasi kapasite ya x́we av distine. Ji

Qur'anêji her mirovek bi qasi nesibê x́we pay distine. Lewre x́wendin û x́ebata fêhmkirina Qur'anê çuqasi zêde bibe îlm û firaseta mirov ji ewqas wê pêşve biçe inşaallah.

Û disa ĵi mere digotin "Heydê, nesekinin Qur'an bix́wiyinin". Bix́wiyinin lê belê x́wendineki çawa? x́wendineka netemami, x́wendina ji mushefê û bi erebî. Ne fêhm û ne idraq, x́wendinekî ziwa. Van kal ên ku rojên x́we li hewşên mizgefta derbas dikin û virdê x́we yên rojani berdewam dikin tu pirsgireka şeytan bi wan re tune ye. Şeytan wê çi bike ji wan kesên ku di rojekide sûreyên Yasin û Amme yetesaelûn û tebarekê dix́wiynin û ji x́wendina x́we qet tişteki fêhm nakin. Bawerbike ev şeytan hê bêtir dix́waze ku van sûreyan zahftir bix́wiynin. Bila ji x́wendina x́we qet tişteki fêhm neke, hema çukasi dîkare hewqas bix́wiyne, zerar nin e ferk ji nake!

Rasulullah (ass.) ji me re wiha naferme? "Qur'ana nefêhmkiri were x́wendin x́eyr tê de tun e." Erê, bêguman Rasulullah (ass.) rast gotiye. Ka tu ji bifikire, Qur'ana ku bî nefêhmkirin were x́wendin wê ji mirov re çi bide karanin? Bizanibe

ku ev Qur'an ji bo te rêber e. Rêzan a hidayetêye.

Ev rêzan û rêber wê bi te bidin zanin ku wê tu li vê dinyayê çawan bivejini û ji boyi bigihêji beẋtewariya bêdawi çi lazim û pêwistiye.

Ji bo Qur'anê minakeki ẋweşik heye. Qur'an weki nameyeki binavdikim. Ev name Ji Wi yê ku Wedûd e hatiye. Wedûd ew e ku ji abdên ẋwe pîr hez dike û ewji heri layiqê hezkirinê ye. Name, nameyeki heri ẋweşike.

Em bibêjin, dosteki te heye. Gava tu wi nabini bêriya wi diki, dengê wi Sehneki dilê te teng dibe, kesera wi kezeba te dişewitine yanê tu zahf hez jê diki. Nameyek/mektubek ji vê dostê te hat. Dema ku mektup ket destê te ji kelecanê hindik mayibu te wê zerfê biçirandana. Pişti ku te zerf vekir, wê lehzê mektup bidi deste ẋwe û destbiẋwendinê biki ne wusa? Helbet wusa ye. Herê, em bibêjin wi dostê te nektuba ẋwe bi zimaneki ku tu pê nizani, mesela bi zimanê ingilizî nivisandiye. Lê belê tu ji bi zimanê ingilizi nizani. Qet nebe wê tuyê çend caran çavên ẋwe li ser vê mektubê bigerini ji bo ku bi tişteki fêhm biki:

"Gelo ezê bikaribim hema çend peyvan fêhm bikim da ku hesreta min bibore." piştre wê tu çi biki? Di be ku tu bibêji "Ji x́we ez qet fêhmnakim" û vê mektubê bavêji keviyeki? Nex́we çukasi dûr bibe bila li dûr be wê tu werger / tercüman e ki bibini û bidi wergerkirin. Bivê awayê wê tu yê lî hember vê hezkirina hogirê x́we/dostêx́we bi hezkirineki qawi miqabele lê biki. Tevgera te yê bi vê awayê ji bo te izzet û rûmet e. Ev çukasi kareki bi zehmet û bi kulfet bibe ji wê tu yê wusa biki.

Herê birayêmin. Ka bibêje, ev mektuba Qur'anê ku ji Rabbê alemê; x́wediyê qelbê te, hakimê jiyana te, ewê ku te x́wuliqandiye, ewê ku te divejine, ger temamên dost û muhibênte te biterikinin ji ewê ku terka te nake, wex́tê tu diterpili ji destê te digire û te radike, heta weki ku toz û telazên li ser te were weşandin te ji gûnehan pakij dike, mektuba ku jê hatiye bi gotina "ev mektup bi zimanê erebiye welle ez jê fêhm nakim" vê gotinê tê çawa bavêji qunceki x́alî û piştguh biki? Ma qîmet û rûmeta Rabbê alemê li cem te bi qasi wi hogir/dost ê te ji tun e?

Ez seh dikim ku tu dibêji "Helbet heye, ma di

vê mijarê de qet pivek û qiyas çedibe?”

Her weha ev nameya ku bi zimanê pêx́embereki piroz gîhaye te qedreki pir mezin bide. Ev kitêb ya wê ji te re şefaat bike yan ji wê gilihkar ê te bibe. Allah *azze we celle* vê yekê di Qur’anê de ferman kiriye: “Hûn mes’ulîn, hûn ê hisab bidin!”

Nex́we nesekine. Aniha wergereki/mealeki bide destê x́we û ji bo fêmkirina Qur’ana piroz dest bi x́ebatê bike. Tu çawa bix́wazi wusa bix́wiyne. Te di vê jiserde dest bi x́wendinê bike. An ji tu bix́wazi ji dawiya Qur’anê dest bix́wendinê bike. Qet ferk nin e.

Ger dix́wazi rojê meal a cûzuyeki bix́wiyne an meal a sûreyeki an ji meal a yek ayeti bix́wiyne. Lê dîvêt tu teqez bix́wiyni. Lewre vê heqiqetê qet ji bir neke ku wehya yekemin ĵi Rasulullah (ass.) re hatibu Allah *azze we celle* wiha ferman dikir: “Bix́wiyne”... Bala x́we qenc bidê! Fermana ilahi yê yekemin ne nimêje, ne rojiye “Bix́weyine” ye... Fêm diki ne wusa? Helbet ev nayê me’na ku tu nimêj neki û roji negiri. Bila bi şaşiti newe fêmkirin. Nimêja x́we bike, rojiya x́we bigire lê bix́wiyineji. Tu cari nex́wendinê neke. Lewre ku

insan neẍwiyne dibe êsirê nezanin û cehaletê. Li hember heqqê diberize!

Tu diẍwazi her gav yeki şiyar bi tere be û her lehze te hûşyar bike. Dema ku tu bikevi nava çerẍ û vajeki wê tu biẍwazi hogirek/dostek li cem te hebi. Vaye ji tere hogir û peyva hogir. Neẍwe li çi mayi sekini? Heydê, dest bi ẍwendina nameya dost ê ẍweşewist bike, pê re ji fêm bike û tiştên ku te fêmkir bi dilsozî bivejine, têẍe heyata ẍwe.

Lê viya ji jibîr neke. Weẍte te dest biẍwendinê kir ji şerrê şeytanên ins û cin ẍwe bispêrê Allah *azze we celle*. Binhêre, Allah *azze we celle* di ve mijarê de wusa diferme: "Çi dema te dest bi ẍwendina Qur'anê kir, peşî ẍwe ji (şerrê) wi şeytanê qeşiti bispêre Allah."

Çimki gava tu dest biẍwendina Qur'anê biki ew şeytan wê weswese yên cûrbicûr bide qelbê te. Wê ji te re bibêje "Ka wê tu çi ĵî vê Qur'anê fêmbiki?", "Meyzê, eger tişteki şaşiti hin bibi wê tu ji dinê islamê derkevi ha!", "Hêêy hişsiviko! ĵi boyi fêmkirina vê kitêba piroz hê dîvê tu çend tenur nan biẍwi..."

Û hê tiştên weki vi wê bigelek hezeyanan wes-wese bide te.

Tu qet zenneke ku weх́tê Qur'an biх́wiyni şeytan nêzîkê te nabe. Şeytan asıl dema ku tu Qur'anê biх́wiyni wê nêzikêtê bibe û wesweseyan bide te. Hela ku te dest bi fêmkirina Qur'anê kiri-be wê şeytan dîn û har bibe. Lewra weki min berê ji tere gotibu şeytan jiх́wendina bêfêmkirin qet acîz nabe. Ew kalê pir ku pênç ferz nimêja х́we li mizgeftê dike, tişteki ĵiх́wendina х́we fêmnekeji Qur'anê diх́weyine lê belê ji dinya х́we qet tawiz nade, ka wê şeytan ĵî çiyê wî aciz bibe? Tu zerar û х́esara vi kalî li keseki nabe wê çawa ji şeytanre hebe.

Lê ev kalê pir biheyl û quwweteki li ber х́we bide û ji boyi fêmkirina Qur'anê biх́ebite wê çaх́ê şeytan wê ji qehra bifetise û biteqe.

Ger diх́wazi ji bo vê mijarê baş fêmbiki em bihevre derkevin gerê. Şifêreki me heye û ewê me biqefleki re derêх́e rêwingi yê. Weх́tê mirov bi wesayitan di rê de diçe weki tu ji dizanî gelek lewheyên hêl nişan didin hene. Ji wan lewheyan yek derket pêşiyame. Li seri ĵî wiha dinivisine:

“(Dikkat) Bala x́we bidin! Ji vê dere 15 km. Şûnde kortalek heye, dibe ku hûn terabibin!” Em bibêĵin şifêrê me bisekine û bi awayeki baldarî vê nivisê bix́wiyne... û bix́weyne. Bi x́wendinêji bes neke û jî rêwenga re bibêje “kerem bikin hûn ji vênivise bix́wiynin, ev nivis pîr bi qedre, heta jiwe tê hûn ji bix́wiynin” û me teşwiqbike da ku em ji wi nivisa lewhayê bix́wiynin.

Em vê nivise gelek caran bix́weyinin û carekidi lê bizivirin disa bix́wiyinin hetani em wê nivise jiber bikin bix́wendina x́we berdewam bikin.

Ji boyi ku nivisên li ser lewhayê baş nayê x́wendin şifêr wê lewhayê bi yeki qenctir digewi-rine. Pişti vê qasi êdi çi pêwiste ji bo me û ji boyi şifêre me? x́wendina wê nivisê piştra lazım dike ku em yek pêgaveki pêşde neçin, ne wusa?

Lê belê tevli vê x́wendina nivisa lewhayê ger em vê nivisê fêm nekin an em fêm bikin û pêre disa bî pêşve li rêya x́we berdewam bibin û guhê x́we nedin wê nivise?

Tevli vê nivisa lewhaya hişyariyê Allah *azze we celle* hişyarekidi ji derêx́e peşiyame. Ev hişyar gazî

me bike û me bisekinine. Ji me re bibêje: “Bira x́êre li we? Hûn bi vê halê x́we bi ku derêve diçin?” Pişti vê pirsa wi ji şifêrê me bersiva wi bide lê ev şifêr ji x́we gelek qayile: “Ev cûwamêrên hanê rêwingên min in. Em derketine gerê” Li hember vê bersivê ew, hişyarê li ser rê me sekinandi vê pirse bike “Erê, we lewhayê hişyariyê qet nedit?” Şifêrê me disa bî qurreti bersivbide “Çawa me nedit? Belê me dit, me x́wend, heta hinek jîme bun hafizê wê lewhaye. X́wedê ji x́êrê dernex́e, eşkere kirina tiştên wusa ne başe lê me ew lewhe bi yeki qenc û nipinû re gewirand” Dema ku şifêr vê bersivê da ew hişyarê li ser rê me sekinandi wê wusa nebêje: “Geli cûwemêrna! Belê, we ewqasî x́êr kirin lê belê we maneya wê nivisa li ser lewheyê nivisandi fêmnekir?”

Wê eyni wiha bibêje û vê gotina x́wê wê bi şaşiti bibêje û wê ecêb bimine li vê sersariya şifêr û me. Bi gori qeneeta min ne nehaqe. Lewra di x́wendina nefêmkiriride qet x́er tune ye. Gotinê min, te qenc fêmkir. Lê tu bix́wazi were em hinek li ser x́wendina me yê Qur'anê bisekinin. Em ê li ser vê minakê dest pêkin.

Em ĵi iroroj lewheyên li pêşiya x́we dix́wiynin.

Hinek ji me bi şev û bi roj dix́wiynin. Yasina dix́wiyinin, tebarika dix́wiyinin ammeyetesae-luna dix́wiyinin... Heta gelek insan van sûreyan jiber dikin, bûne hafizê van sureyan. Ev sûreyên hane her gav her seet me hişyar dikin. " (Dikkat) Bala x́we bidin! Cennet, (Dikkat) Bala x́we bidin! Cehennem, hisab, ezab, mukafat! Ji boyî me ji cehennemê biparêze û bi aliyê cennetêve bide meşandin wusa diqêrine.

Lê ka wê ji vê qêrinê kî fêmbike. Lewra em ji van ayetan tişteki fêmnekin ê ku fêmdîkin ji bi qelem û kelamen x́we ḡulamtî ji tağutan re dikin. Bûne çêlî û cewriken Bel'amê kure Baura.

Ji ber ku gel, van lewheyan yani bieşkereti em bibêjin, van ayetan dix́wiynin û tişteki fêmnakin mix́abîn ber helakêve hinek jiwan dimeşin, hinek jiwan ji dibezin lê ewji nizanin bikuve diçin!

Dibêjin niyeta me x́alise, qenc e, lê amelê wan amelên mûşrika û yên kesên ehlê cehennemêye. Tu lêdinêri hinek mirov dertên, Qur'ana piroz çap dikin, ji boyi weşandin û belavkirina wi x́ebat

dikin lê hûkme wi nizanin, ji naveroka Qur'anê bê x́eberin.

Erê, birayêmin. Ev minakên hanê ku em bi van minaka her roj rûbirû diminin, minakên ji boyi ku qedrê x́wendina Qur'anê, x́wendineki bireweri bi te bide fêmkirin min hilbijartin. êdî ji iro pêde bî x́wendina Qur'anê wê tuyê ne tenê x́wendineki ziwa fêmbiki inşaallah. Wex́te behsa x́wendinê hate holê lazime ku evji werin bira te: "X́wendin; fêmkirine, vejine, zanîne, tebliğe, hêze, hezkirine, eşkeretiya iman û aqidêye, x́wendina Qur'anê, ji boyi numûne buyina ji insana re pivike".

Bawer bibe, wê tuyê bivana re bex́tewar bibi. Van ayetan ku bifêmkirin bix́weyini wê tu piştgiriya gotinên x́weyê li ser mijarên islamê bi vi biki. Di vê mijarê de hedisên Rasulullah (ass.) em dizanin ku jiyana wi Qur'an bix́weye, wê ji tere bibin hewl û piştgiri inşaallah. Lewra Rasulullah (ass.) di mijara fêmkirin û vejina Qur'anê de minakeki x́weşik û zindîye ji boyi muvahhidan.

Birayêmin ê x́weşik, bi vê misala hanê hediseki Rasulullah (ass.) hate bira min. Ezê ji te re bibêjim. Liber ronahiya vê hedisê ev gelê ku em ji

danav wande dijin bihevrebûna wan û Qur'anê ji me re eşkere dike.

"Jinava we komek mirov wê derkevin. Hûne nimêja x́we liber nimêja wan, rojiyên x́we liber rojiyên wan û şuḡlêx́we liber şuḡlê wana herî biçuktir bibinin. Ew, Qur'anê dix́wiyinin lê Qur'ana ku dix́wiyinin ji qirika wana berjêr nabe. (Bitenê wê binin ser ziman û hew!) Herweha ew kesan çawa ku tir ji kevan difilite wê ji din derkevin."

Sûbhanallah! Te sehkir biraye min?

Ev mirovên ku Rasulullah behsa wan dike dijiyana wande nimêj heye, roji heye heta şuḡlê ku dikinji bêkêmasiye. Madem rewşa wan wusaye çima weki ku tir ji kevan difilite ji din derdikevin? Ne zêde, yek bersiva vê pirsê heye. Çimki ew, Qur'ana ku dix́weyinin nax́in heyata x́we, pê amel nakin. Qur'ana x́we têx́in hewleqên neqişkiri û yên heri x́weşik. Qur'ana x́we dinav x́aniyêx́wede li cihêki heri bilind digirin. Lê ew Qur'an ji hewleqan dernakeveû nakeve jiyana kesanî û ya malbati u ya civatî, û ew Qur'an ji ser dolav û diwarên bilind berjêr nabe û nakeve odeyen mê, kolanen mê, sûkên me, kargeh û dikanên me.

Çimki ew kes, wan ayetên ku tağuta red dike dix́weyinin, lê x́we ji wan tağuta dur nakin. Carînan dibin qerwaş û ḡulamê tağuta, carinanji ew bix́we dibin tağut!

Hûkmê ilahi ku dibêje “Hakimiyet tenêbitenê yê Allah e” lê ewê ku şev û roj Qur'anê dix́wiyinin mux́alifê vê hûkmê tevger dibin. Diçin haqqê Allah *azze we celle* li cem x́we betal dikin û ve heqqê didin komek mirovan. Ew dibêjin “hakimiyet bila bitenê ê gel bibe”.

Ayeta Qur'anê diferme “Nimej ji temamê x́erabî û çapaliya durdike”.

Vê ayetê dix́weyinin û di yek nimejekide bist car dibêjin “Allahuekber!” yanê “Ê heri mezin Allah e!” û piştreji diçin hinek mirovan an ji tiştêndi ji x́were mezîn qebul dikin û x́we biwan digirin.

Qur'an dibêje “Allah ji te re wekile û bes! Ew vê ayetêji dix́weyinin lê pê tevgernabin. Vaye em dibinin serê çend sala careki wê bikişin serê sandokan. Bi vê çûyina x́we ji ḡeyni kitêba Allah *azze we celle* yanê ev Qur'ana ku ji boyi jiyinê nazil bûye wê biterikinin û ji bo jiyana x́we hin kitêb û qanunên

nû çêbikin wê jiẋwere wekilên nû bihilbijêrin. Sedema wê qawmê ku ji din derdikevin yek ji eve.

Allah *azze we celle* diferme “Ayetên Allah bi bûhayeki pir erzan nefiroşin”. Ew kesên ku vê ayetê diẋweyinin û pêreji ji boyi ku diplomeyeki bi kêri zahfi tiştaji nayê bistinin wê dinê İslamê li ser hisabên ẋwe bi erzanî bifiroşîn. Mazereta wan ji amadeye: “Ger em biẋebitin û dinava devletêde bigihijin deverên giring û meqamên bilind da ku em wê çaẋe bikaribin İslamê hakim bikin”. Bivan fort û zîrtê hanê wê zulmê li nefsa ẋweji bikin û goya bi vê teqiyye yê zen dikin ku bi can û bi malên ẋwe cihadê dikin û ẋwe têẋne ẋetereyeki pir mezin!

Bi gori qaida “La ilahe” yê, gere her çûkas put û senem û ilahên ẋwiyayî an ji ê razber hebin divê ku temaman ji nava heyatên ẋwe derẋistibuna. Lê miẋabin wiha nekirin. ẋwe kirin listoka şeytanên insî, hewa û aqilê ẋwe ẋistin pêşiya wahya ilahî. Gotin “Em neçîn ser, em nebîn mezin û serok wê ẋwedênenas werin serême!” Bi vê awayêji pişti hezaru çarsedu sih sala he ji nûda ji ẋwere ilahan çekirin.

Arîkarî û nûştera Allah *azze we celle* negiring kirin û çirokên ku x́we pê x́apandin nivisandin: "Cuwamêr, lazime ku musulmanê ve qernê dewlemend bin". X́we bi van çirokên pûç x́apandin heta ku ewji jinefsa x́were bûn hogir û bi rêya helakêve dest bi meşê kirin. Dawiyêdeji rabun gotin: "riba ji weki dayinustendinêye, di navbêra wande tu ferk tûn e, jix́we riba helale!".

Heyata eshab (Allah jiwan razibe) bi derd û bi kederbu. İşkence û sitemkariyên ku Rasulullah (ass.)kişandiye bê hed û bê hisabe. Ha ev kesên ku şev û roj Qur'anê dix́weynin û ji heyata Rasulullah (ass.) û eshabên (Ajr.) wi van qisetên işkenceyê, mahrumiyetê zûlm û zahmetê qiset dikin, bê sekin û bi qurreti va'za dikin, dema ku ji boyi x́ebat û x́izmeta İslamê têkarbunek ji wan were x́westin bersiva wan her dem li ser zimanê wane: "Allah diferme: 'x́we bi destên x́we neavêjin x́etereyê' ". Vê ayetê bi gori dile x́we tewil dikin. û ji qada cihadê firarê dikin.

Wê bibejin "Nimêja x́we bikin, zekata x́we bidin û rojiya x́weji bigirin lê nebe nebe hûn tevli şiḡul û karê dewletê bibin, lewra cihê dinyê

cûdaye cihê aẋiretê cûdaye!”. Bivê gotinê ẋwe dikin weki cihuya ku ew cihuji wiha dibêjin: “Hakimiyeta Allah lî asimanaye”.

Erê birayemin... Weki ku te ji fêmkirîye ev mijar ne mijara bitenê nimêj kirin û roji girtina hinek mirovane.

Mijar eve ku, çawa kesê di nava nimêjêde hakimiyeta Allah *azze we celle* qebul dike divê di qada temamê jiyanaẋwe de vê hakimiyeta Allah *azze we celle* bîbiryari û bêkêmasi bi cih bine.

Mijar eve ku, çawa Allah *azze we celle* têkili ibadetê me dibe û bime ferzkiriye weki vê mijarê emê bizanibin ku Allah *azze we celle* wê têkili sistema dewletêji bibe. Iman anina van mijara pêwisteki herî giringe. Di vê ku ev herdu mijar jihevdu cûda neyin ditin. Lewra mirov di nava nimêjêde çawa abditiye dike bi qedandina nimeje abditiya wi na qede. Mal û perê ku tên qezenc kirin çawa biferzkirina zekata wan Allah *azze we celle* ẋwedi soze, têkili dadmendîû bazirganiyêji dibe. Ev herdu miĵarji ji hevdu ne cûdane. Divê em divan mijarade her çi lazime wê bikin.

Tu fêmdiki ne wusa? Allah *azze we celle* ji mere wusa diferme: *"Gelî ehlê imanê! Ji Allah, bî şayanêki lê hatî bitirsin û bitenê bi musulmanîti bimirin."* [1]

Ger her kes û her kom bi gori têr ditina x́we pîvikan deyne wê gavê İslam ji holê radibe û di şûnde dîneki di derdikeve. Lê navê wi dini ne İslam e! Lewra bi vê awayê serê mirovek û komek dineki jiḡeyri İslamê derdikeve meydanê. Ev dinên hanê nivedin e. Mirovê ku got ez musulmanım mecbure wê musulmanitiya x́we bi gori İslamê vejîne û aqideya x́we sererast bi eşkereti derêx́e meydanê! Weki wi gundiyê fenoke ku tîriyê x́erabuyi û perçiki x́istiye biniya zembilê û serêwiji bi tiriyê sincêri dagirtiye İslam bi niv e niv nabe. İslam ne dineki kinêminê ye. Ne bi gorî min an ji bi gori te, bi gorî İslamê! Bi gorî emr û dax́waza Allah *azze we celle*.

Dax́waza Allah *azze we celle* ne baweriyeki ku di hinek mijarade hakimiyeta Wi hebî û di hinek mijaradeji hakimiyet di destê x́wedihêzên cûdayi bibin.

1. 3/Alî Îmran, 102

Hakimiyeta ku li temame mijar û rastnaviya heyatê cari ye... Allah *azze we celle* vê daẋwaz û ferman dike. Navê vê dawa hanê dawa ku cihada yekemin binefsê re ya duyemin ji bi tağuta re were kirine. Di cihada yekemin de ji boyi baweriya tewhidê bi biryari û bê kêmasi dî qelb de bi cih bibe mirov li berẋwe bide û vê aqideya tewhidê li navenda mêjiyê ẋwe, li hûndirê rohê ẋwe û li ser dilê ẋwe neqiş bike weki neqşê li ser lat û kevira. Cihada duyemin ji eve ku vê aqide ya zelâl û bê gemmar bigihinin insana û civaka û welata. Tekoşina me tekoşina hakimiyeta islamê ye. Ew İslama çawa ji Rasulullah (ass.) re hatiye weki wê islamê zelal, eşkere, qawî û bi qêrina La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah! Belê tekoşina me tekoşina helaka tağutane, heta zewala fitneyê lî ser rûye erdê... İnşaallah.

Birayêmin ê ẋweşewist û hêja! Bî sebr û semaẋ te guhdariya min kir. Ji boyi vê cûwamêriya te gelek spas dikim. Bi qasi ku zimanê min vegeriya û bi gera pênuska min ê li ser vê pertukokê tiştê dizanibum min bite re parkîr. Êdi dor, dora te ye. Vê pertûkokê nebe nebe bavêji pişt guhê

x́we! Ku te vê pertûkokê da destê x́we hema lehzeyeki çav lê negarini û navêji kuncan. X́wendina vê pertûkokê ne ewiqine û ne bibêje “ez ê piştra bix́wiyînim”

Tu bizanibi dema ku ev pertûkok hate nivisandin yek çerx́iyek ne hatiye x́westin. Çawa Pêx́emberan (ass) gotîbun, niviskarê van rêz an Ji bi wê niyetê nivisandiye: “Ez heq ê x́we ji Allah hêvi dikim ku ewe rabbê aleman”.

Bitenê jitê te x́westin ji boyi x́atirê qalema ku vî nivisandi tu vê pertûkokê bi baldarî bix́weyini û fêmbiki. Pişti x́wendin û fêmkirinê ji çi lazime dî kirinêde qet tex́sir neke û kêm nemine.

Hege tu dix́wazi heqeki bidi mîn ew heq ewe ku, tu tağutan red biki û ji wana biqerihi, biqehrekî imanî!

Ji heq û ji ehlê heqqê re dildar û dilevin bibî. Ji musulmana re dilgerm û dilronî bibi.

Tu hevoka “La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah” qenc fêmbikî. Bi vê femkirin û zanina x́we bi ix́las amel biki. Jiyana x́we bike şahidê İslama x́we. Aqideya x́we bidilsozî û bicanfîdaî

biparêze.

Meşa te yê li ser rêya tewhidê piroz be! Her lehzeya te yê lî ser vê rêye Allah *azze we celle* Arîkarê te bîbe! Bimine dî nav x́êr û x́weşiyêde...

Hamd û pesîndanên herî x́weşik bîtenê ji Allah re ye...

12.02.2012 Yekşem

(Pazar)

Bîrayêminê X́weşewist!

Tu Peyva La ilahe illallah Muhammedun Rasulullah genc fêmbike. Bi zanin û ix́las amel bike jiyana x́we bike şahidē İslam'a x́we. Aqideya Tewhidê bidilsozi û bidilx́urti biparēze.

Ji heg û ehlê Tewhidê re dildar û dilevin bibe. Ji Musulmana re dilgerm û dilronî bibe.

Meşa te ya li ser rêya Tewhidê piroz be! Allah azze ve celle arikarê te bibe. Biminê di nav x́êr û x́weşyêde.